

## Heyeteke PDKÎ di merasima sersaxiyê ya mamosta Ezîz Mihemed de beşdarî kir

»»»» R:4




*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (303) 05-06-2017 Buha (1000) Tûmen*

# CIA rejîma Îranê dixe tengasiyê de




**Di her karekî têkderane de, şûnpiyê Îranê heye**

Piştî danîna berpirsekî nû ji bo karûbarên Îranê ji aliyê dezgeha Îstixbaratî ya Amerîkayê û herwisa qewl û sozên Trump derheq encamdayîna pêngavên bi kiryar derbarê kurtkirina destên Komara Îslamî di navçeyê de, CIA odeyeke taybetî bo encamdana operasiyonên zanyarîwergirtinê li dijî rejîma Îranê ava kiriye.

Rojnameya “wall street journal” di raporekê de bas ji vê kiriye, ku CIA a Amerîkayê odeyeke taybetî bo operasiyona zanyarî û ajantiya li dijî rejîma Îranê ava kiriye, û li dijî vê rejîmê kar û çalakiyan dike.

Vê rojnameyê bas ji vê jî kiriye ku Trump siyasetên dijberiya digel Amerîkayê daniye serweyî karên xwe, û li gora vê raporê erk û wezîfeya vê odeyê, komkirina şirovekaran, pêrsonêl û şarezayên operasiyonan bona encamdana operasiyonên veşartî, derheq Îranê de ye.

»»»» R:2



## Peyama hevxemiya Mistefa Hicrî derheq koça dawiyê ya Ezîz Mihemed

»»»» R:3

## Li ser pirsa yekgirtinê, herdu Defterên Siyasî kom bûn



»»»» R:2

## Terorîzma du serî



»»»» R:2

## Pêngav ber bi lûtkeya mafê diyarîkirina çarenûsê

»»»» R:5



## Çima baykota hilbijartinê ya şêvrên gund û bajaran biryareke rast û di cihê xwe de bû?

»»»» R:8



## Sergotar

### Terorîzma du serî

Kerîm Perwîzî

Metelokeke Kurdî heye ku dibêje hekî te mar birîndar kir û te nekuşt, wê li rêvîngan vede, û renge rojekê li te jî vedet. Eva çîroka van salên dawiyê ên Ewropa û Amerîkayê ye.

Di Rojhilata Navîn ya pirr ji kêşe û stemkariyê de, bêdadî û çewsandin û serberedayî hukm dikin, û deshilat bi ser hemû civakan de, bi dest ve girtiye. Di erdnîgariyeke siyasî ya bi vî rengî de, serkut û bêdadî sebebkar in, bo nerazînîşandan û ji aliyê din ve jî, bawerî û bîrokeya dijî azadî û kevneperestiyê, sedema sereke ya vegeşandina agirê stem û tundûtîjiyê ne.

Di nava vê goma ava şêlû ya Rojhilata Navîn de, terorîzm, terorîzmê berhem tîne, û tundajoyî jî her tundajotiyê berhem tîne, û dibe hêcetek bo tundajoyiyeke din. Bi vî rengî rûçikê siyasî ê Rojilata Navîn pirr e ji agir û hesin û xwîn!.

Deshilata Komara Îslamî jî ku dayîka hemû îdeolojiyên terorîstî ye, ji tundajoyiya selefî ya cehadiyên hilkeliyê şikevtên tarî ên paşvemayî, mifaha ne di cihê xwe de werdigre, û hem bi berçav dijberiyê digel de dike, û hem jî di bin de jî, hander û alîkarê wan dibe, her wekî ku çawa di pêwendiyên Komara Îslamî û Talîban de bi belge derket, û berdevkê Taliban bas ji lihevkirina digel Tehranê kir. Çend salek in li Sûriyê, hemû tundajoyî û terorîzmek bi berçav cuda, lê di navika xwe de wekhev û hevşêwe, gêjaviyê çê dikin, û babelîska dijatiya jiyana azad û bextewerane radikin. Komara Îslamî û dêl û çiq û deskebivirên wê jî, zoranbaziyê digel Elqa`îde, bereya El-nusre û DAÎş û … hwd dikin, û di bin de jî alîkariya yektir dikin, da ku çi ji wan ji nav neçin, û bi vî rengî hêceta domandina bi jiyana xwe bin bo hevdu. Di nava vê gêjava dijî mirovî de, helwesta Ewropa û Amerîka, helwesteke nivîşkan bû, û herçend bordûmana DAÎŞ`ê kirin, û gef li Beşar Esed û Koamra Îslamî û Hizbullahê û dostên wan

»»» R:4

## Li ser pirsa yekgirtinê, herdu Defterên Siyasî kom bûn

**Birêz kak Mistefa Mewlûdî bi serperestiya heyeteke Deftera Siyasî serdana PDKÎ kir, û di vê hevdîtinê de, çawaniya domandina diyalogê di pêxema yekgirtinê de hatin baskirin, û heyeta diyalogê erkdar kirin bo domandina gotûbêjan.**



Di doma civînên herdu Defterên Siyasî de, roja Çarşemiyê 31.05.2017`an rêzdar kak Mistefa Mewlûdî bi serperestiya heyeteke Deftera Siyasî serdana PDKÎ kir, û ji aliyê heyeteke Deftera Siyasî bi serperestiya birêz Kak Mistefa Hicrî ve hate pêşwazîkirin.

Di civîneke dostane de, çawaniya berev pêşvebirina erk û wezîfeya yekgirtina refên PDKÎ xistin ber basê, û herdu Defterên Siyasî piştî behseke hûr û hemû alî, di vê derheqê de heyetên herdu aliyan erkdar kirin ku hewl bidin bi berçavgirtina wan rêûşûnên (tevdîrên) ku di encama behsên vê civînê de hatin diyarîkirin, bona domandina civînên xwe, û gihîştina bi lihevkirinekê kar bikin, ku hem encama wê yekgirtina hizbê be, û hem di pêşerojê de, pêkvebûnê di pêxema xebata bo bidestxistina armancên gelê Kurd di Rojhilata Kurdistanê de desteber bikin.

## Bavê şehîdekî riya rizgariya Kurdistanê koça dawiyê kir

**Kak Ebdullaha Berşan bavê şehîdekî riya rizgariya Kurdistanê li bajarê Pîranşarê koça dawiyê kir.**



Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, şeva 8`ê Cozerdana 1396`an kak Ebdullah Berşan xelkê gundê Nimincê ya ser bi bajarê Pîranşarê û bavê kadrekî PDKÎ bi navê şehîd Rehîm Berşan di temenê 80 saliyê de bi sedema nexweşiyê koça dawiyê kir.

Navbirî keskeî xweşnav û welatparêz û cihê baweriya xelkê navçeyê, û endamê tevgera salên 1346-1347an bû, û hertim şanazî bi rêbaza kurê xwe ve dikir.

Termê navbirî di nava girseya xelkê herêmê de bi axê hate spartin.

PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat û kesûkarê wî kesayetiyê welatparêz, û xwe di xem û kesera wan de hevpar dizane.

»»» Doma R: 1

Mayk Pimpio birêveberê CIA yek ji dijberên serekî ê lihevkirina navikî digel Îranê ye. Çend rojan berî niha rojnameya New York Taimzê di raporekê de belav kir, ku dezgeha Îstixbarata navendî ya Amerîkayê bo beşa karûbarên pêwendîdar bi rejîma Îranê berpirsekî nû diyarî kiriye.

Vê rojnameyê nasnameya vî berpirsî Mykil Dî Andirêa ragehandiye, ku naznavê “şahzadeyê tarî” li ser e, û di serdema serkomariya Obama de, pirograma kuştinên armancdar li ser milên wî bû. Herwisa “businessinsider” yek ji malperên Amerîkayê di raporekê de bas ji vê kiriye, ku Trump di hewla rêkxistin û pînekirina hemû parçeyên pêwîst e li dijî Îranê”.




Rejîma Îranê wekî rejîma herî serekî bo piştevaniya terorîzmê di cîhanê de hatiye nasîn. Di destpêka meha Cozerdanê de, û piştî sefera Trump bo navçeya Rojhilata Navîn, rojnameya

»»» Dom R: 8

# Peyama hevxemiya Mistefa Hicrî derheq koça dawiyê ya Ezîz Mihemed



**Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ derheq koça dawiyê ya Ezîz Mihemed sekreterê pêşîntir ê Partiya Şiyû`î peyameke hevxemiyê belav kir.**

**Deqa peyamê:**

Peyama sersaxiyê ya sekreterê giştî ê PDKÎ derheq koça dawiyê ya heval Ezîz Mihemed

Koça dawiyê ya mamosta Ezîz Mihemed sekreterê pêşîntir ê Partiya Şiyû`î a Îraqê û kesayetiyê mezin û navdar ê biyavê kurdîniyê, ji bo hemû wan kesên ku ew rêzdar nas dikirin, û şarezayî li ser derbazbûyiya dehan salî ya xebat û têkoşîna bê rawestiyan û mandînenasane ya wî hebûn, nûçeyeke tal û bijan bû. Bi koça dawiyê ya vî rêzdarî, Kurd bi giştî xebatkarekî mezin ê riya aştî û biratiya xwe ji dest da, jiber ku ew yek ji wan xebatkaran bû ku bi zehmet cihê wî pirr dibe, lê bo me wekî PDKÎ, koça dawiya ya wî, ji bilî vê yekê, xisara jidestçûna dost û xemxorekî dehan salî bû, ku di pêkanîna pêwendiyeke kûr û berdewam ya biratiyê di navbera Partiya Şiyû`î û PDKÎ de roleke berçav hebû, pêwendiyek ku heya niha jî di vegeşînê de ye.

Bi boneya vê xisara mezin, em sersaxiyê dibêjne xwe, Partiya Şiyû`î a Kurdistanê, û endamên malbata vî mamostayê mezin, û hemû dost û hevalên wî, û xwe di xema jidestdana wî de beşdar û hevpar dizanin.

**PDKÎ**
**sekreterê giştî**

**Mistefa Hicrî**

**11.03.1395**

**01.06.2017**

# Heyeteke PDKÎ di merasima bi axê spartina Ezîz Mihemed de beşdarî kir

**Heyeteke PDKÎ bi serperestiya Mihemednezîf Qdirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ beşdarî kir di merasima bi axê spartina Ezîz Mihemed de.**

Roja çarşemiyê 11`ê Cozerdana 1396`an, heyeteke Deftera Siyasî ya PDKÎ bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî a PDKÎ di merasima bi axê spartina Ezîz Mihemed sekreterê pêşîntir ê Hizba Şiyû`î a Îraqê de beşdarî kir.

Di vê merasimê de, heyeta PDKÎ peyama hevxemiya PDKÎ gehande berpirsên vê hizbê. Di vê merasimê de, berpirsên payebilind ên îdarî, siyasî, nûnerên hizb û aliyan, kesayetiyên Kurdistanî û Îraqî amade bûn.

Termê Ezîz Mihemed siyasetmedar û têkoşerê mêjîn û navdar ê Kurd li goristana şehîdên şiyû`î li bajarê Hewlêrê bi axê hate spartin



## Heyeteke PDKÎ di merasima sersaxiyê ya mamosta Ezîz Mihemed de beşdarî kir



**Heyeteke pilebilind ya PDKÎ bi serperestiya birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê hizbê, di rêûresma sersaxiyê ya sekreterê pêşîn ê Hizba Şiyû`î a Îraqê, mamosta Ezîz Mihemed de beşdarî kir.**

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, roja Pêncşemiyê 11`ê Cozerdanê, heyeteke pilebilind ya PDKÎ bi serperestiya birêz Mistefa Hircrî di rêûresma sersaxiyê ya mamosta Ezîz Mihemed kesayetiyê naskirî ê Kurd û sekreterê pêşîn ê Hizba Şiyû`î ya Îraqê de, li bajarê Hewlêrê beşdarî kir, û peyama hevxemiyê ya PDKÎ gehande malbata birêz mamosta Ezîz û birêz Kawe Mehmûd sekreterê Hizba Şiyû`î ya Kurdistanê, û serkirdatiya vê hizbê.

Di navbera vê merasimê de, birêz sekreterê giştî ê PDKÎ di gotûbêjeke taybetî de, digel televîzyona Rêga, televîzyona fermî ya Hizba Şiyû`î koça dawiyê ya birêz Ezîz Mihemed wekî kesayetiyekî diyar û xûya ê Kurdistanê û hevalekî mêjîn ê PDKÎ û hevalekî biemeg ê şehîdê nemir Dr. Qasimlo, wekî xisareke mezin da zanîn.

## PDKÎ di salvegera avakirina YNK`ê de beşdarî kir

**Heyeteke Deftera Siyasî bi serperestiya Mihemednezîf Qdirî beşdarî kir di rêûresma 42.mîn salvegera avakirina YNK`ê de.**

Roja Pêncşemiyê 01.06.2017 (11.03.1396)an, heyeteke Deftera Siyasî ya PDKÎ bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ, di rêûresmekê de beşdarî kir, ku bi boneya 42.emîn salvegera avakirina YNKê hatibû rêkxistin. Ew heyeta PDKÎ ji aliyê Endamên Mekteba Siyasî ya YNKê, Se`idî Ehmed Pîre û Rizgar Elî û hejmarek endamên Deftera Siyasî ya YNK`ê ve hatin pêşwazîkirin.

Hêjayî basê ye, ku Mam Celal di pirtûka bi navê "Dîdara Teme" de wiha dibêje: "Eger bi rastî bixwazî, damezrandina YNK'ê di 22'ê Gulanê de ye, ne di 1'ê Hezîranê de. Ji ber ku yekem rêziknameya damezrandinê di wê rojê de hat nivîsandin û belav kirin. Piştre civîna duyem li Berlînê di 27'ê Gulana 1975'an de pêk hat. Di civînê de bi serpereştiya Mam Celal di projeyê de hinek guhertin hatin kirin, û bi fermî di 1'ê Hezîrana 1975'an de rêziknameya xwe belav kir."

Di 27'ê Çileya 1992'an de kongreya yekemîn li Silêmanî dest pê kir û piştî du rojan veguhest Hewlêrê.



Di 30'ê Çileya 2001'an de kongreya duyem ya YNK'ê li Silêmanî hat lidarxistin.

Di 1'ê Gulana 2010'ê de YNK'ê kongreya xwe ya sêyem lidarxist û Mam Celal dîsa weke Sekreterê Giştî yê YNK'ê hat hilbijartin.

### »»» Doma sergotarê

xwarin, lê helwesta wan, wekî birîndarkirina marê marxor bûye!. Cîhana Rojavayî wisa dizanî, ku hekî şerê Sûriyê bê dorpêçkirin, û carna jî aliyekî wan bê lawazkirin, dikarin belaya terorîzmê ji xwe dûr bixin, û agirê şer tenê Sûriye û Îraqê digre, û di vê çarçoveyê de berteng dibe, lê bûyerên Fransa, Almanya, Biljîk, û Brîtanya û …hwd nîşan dan, û cardin selimandin, ku terorîzm di navçeyekê de berteng nabe, û agir vedigeşe.

Tenê birîndarkirina marê terorîzmê bersivder nine, û hewce ye her du serên mar hem di Tehranê de, û hemjî di nava rewta selefî ya cîhadî de, bê pankirin, hekî ne, ew du cemikên aşqe û maşqe, wê zawzê bikin, û tu kunceke cîhanê aramî tê de namîne.



## Pêngav ber bi lûtkeya mafê diyarîkirina çarenûsê



**Elî Munezemî**



Bi salan e ku gelê Kurd di tekoşîneke bê rawestiyan de ye, bona bidestxistina mafê xwe, ê serweriya jiyanê, di bin sîbera xwestek û îradeya xwe de, li ser vê erdê ku ê dê û bav û bapîrên wî ye.

Dijminên gelê Kurd nîşan dane ku xwe ji çi kiryareke qirêj û dijî mirovî naparêzin û di doma dîrokê de, eva ku ji destê wna hatiye bo jinavbirina vî mafê zewtkirî encam dane,û gelê Kurd ji bo man û hebûna xwe û ji bo parastina xwe ji destê komkujî û kîmyabaran û girtin û îşkence û hemû wan kiryarên ku li dijî mirovahiyê têne encamdan, pêwîste ku serbixweyî hebe da ku sînorek ji bo gefxwarinên dijminan derheq xelkê Kurd û Kurdistanê bihê danîn.

Gelê Kurd di Başûra Kurdistanê de biryar daye ku îsal di referandomekê de boçûna xelkê di vê para Kurdistanê de, bixe ber çavê xelkê cîhanê, û hêvîxwaz e ku ew îradeya ji aliyê civaka navneteweyî ve rêz jê bê girtin.

Xelkê me di Başûra Kurdistanê de ku zêdetir ji du dehikan e ku xwediyê mafê biryardana navxweyî ne, dixwaze ku ji riya referandomê ve, mafê biryardana derekî ku mafê rewa û dadperwerane ê vî xelkî ye, cîbicî bike, li ber vê ku mafê biryardana navxweyî hemû demekê ji aliyê dijminên gelê Kurd ve gef li ser e.

Ew maf herçend ku di peymannameya NY de bi awayekî eşkere îşare pê nehatiye kirin, da ku nebe sedema anarşîzmê di cîhanê de, (bo welatên kolonî ew maf bi fermî hatiye nasîn), lê mafek e ku gelên bindest û belengaz dikarin bi kar bînin, û bi avakirina welatên serbixwe ji xwe re, bi şadî û serbilindî bijîn. Gef û gefxwarinên Rêber û çekdarên Îraqê, - bo mînak gefên spaha Dîcleyê, û gefên Malikî di çend rojên borî de, - li xelk û hikûmeta Başûr ya welatê me, belgeya herî baş e, bo vê ku Kurd dibe serbixwe be, û tenê serbixweyî dikare Kurd biparêze. Em dibe ku dersê wergirin ji mêjûya serxwebûna Bengiladişê û Kosovoyê û gellek welatên din di vî warî de.

Dema ku hikûmetên navendî ne tenê mafê Kurd naparêzin, belkû gef in li ser hebûn û jiyan û mafê Kurd, dibe ku Kurd bibe xwediyê serweriya xwe ku ew serwerî hem di aliyê yasyaên navdewletî de parastî be, û hem Kurd bo xwe derfeta parastina wê hebe.

“Ji vî cihî ve ku serweriya Kurdisatanê dest pê bike, dibe serweriay Îraqê û Malikiyan û hemû dagîrkerên Kurdistanê dawî pê bihê”.

Di vê gotarê de hewl tê dayîn ku bi kurtî pirsa serbixweyiya Başûr bihê lêkdan, û bandora vê li ser beşên din ên Kurdistanê, bi taybetî derfetên li ber dest Rojavaya welat bixin ber çavê xwîneran.

Zana û teorîsyen bas ji du sedemên sereke dikin ku mafê cudabûnê dide girûpekê ku ji welatê sereke ê xwe cuda bin, û welatekî din a serbixwe ava bikin. Ew du sedem ew qas bihêz in ku xwesta “parastina yekîtiya xak” ya welatan, tê kirin ku li ber wan danên aliyekî.

Sedema yekem ew e ku hekî welatek rêgiriyê bike, ji girûpeke diyarîkirî, ku di biyavê navxweyî de, mafê çarenûsê hebe, û xwe bi rê ve bibe. Duyem ew e ku hekî welatek mafên mirovî ê girûpekê bi awayekî bihêz binpê bike. Di van du forman de, mafê cudabûnê bo cezakirina van welatan ku mafê xelkê binpê dikin, bi girûpên çewsayî û zulmdîtî tê dan. Ew maf ji felsefeya exlaqî û hizrî ve çavkanî digre ku dibêje: “Dibe nedadperwerî bêne rastkirin”. Ew maf bo cezakirinê di çi konvansiyon û peymannameyekê de îşare pê nehatiye kirin, lê belê di nava wan mafan de, ku wekî urf û deb û resm heye, bi tecrube hatiye selimandin, û bi kar hatiye. Pirensîpa pêncem, beşa heftem ya Konseya Ewlekariyê li ser pêwendiyên dostane pêdagirî dike,ku bas ji serweriya xak û yekparçeyiya welatan dike, lê di heman demê de, bas ji vê dike ku hikûmet dibe bi bê cudahiya nejad, bîrûbawerî, û reng, dibe nûnertiya xelkê xwe bikin.

Yanî hekî hikûmet ferq û cudahiyê danê di navbera xelkê xwe de, û nûnertiya hemû xelkê neke, û wan biçewsîne, tê vê wateyê ku êdî yekparçeyiya xaka welat girîng nine û dikare dabeş bibe. Ji vî mafî mifah hatiye standin bo serxwebûna Bengiladişê û cudakirina girava Oland ji Fenlandê, û zeliqandina wê bi Swîdê ve, û di biyavê çarenûsa gellek cihên din (Kosovo, û Kêbêk û hwd...).

Şert û mercê vê ku mafê cudabûnê wekî cezakirinekê bi kar bînin, dibe ji berahiyê, bi başî û zelalî bête rohnkirin. Ji berahiyê dibe ku bê zanîn ka gelo ew mafxwazane dikarin wekî girûp bêne hesabkirin yan na. Li ser vê bingehê gelo ew girûpane di navxwe de pêşiya wan hatiye girtin ku nekarin di navxwe de mafê xwebirêvebirinê hebin, yan ku berbirûyê binpêkirina maf bi awayekî cidî hatine, û di dawiyê de, gelo ew mafê cudabûnê tenê riya mumkin e, yan na, (yanî dawî riya çareseriyê). Heya radeyeke zaf, dibe ku ew mafê veqetiyanê li pey hev bêne dîtin.

> **“Ji vî cihî ve ku serweriya Kurdisatanê dest pê bike, dibe serweriay Îraqê û Malikiyan û hemû dagîrkerên Kurdistanê dawî pê bihê”.**

Bila di pêş de, em avriyeke kurt ya dîrokî bidin pirsa serxwebûna Kurdistanê. Bo serxwebûna Kurdistanê gellek car derfet hebûye. Di vir de bi kurtî wê qala hinek ji van derfetan di sedsala 20 û 21`ê de bê kirin, û em gelelk venagerin paş. Ew derfet her carê bi awayekî ji dest Kurdan derketine, û ew yek jî bi sedema lawaziya yekîtiya navxwe û xemsariya Kurd ji aliyekî û berjewendiya mezinhêzan ji aliyekî din ve bûye. Di peymannameya Sîver de ku mafê Kurd hatibû qebûlkirin, ew maf bûye qurbaniyê danûstandinên zilhêzan, û piştî tewawbûna şerê yekem ê

cîhanî û parvebûna împeratoran, gelê Kurd jî wekî gellek gelên din, bi bê xwest û îradeya xwe hate parvekirin. Mixabin ku ew formola ku Wîlson bo mafê çarenûsê, dixwast piştî şerê yekem ê cîhanî di peymannameya Civaka Neteweyan de cih bide,ku li gora vê formolê, herçend ku welatên cîhanê ji destêwerdana derekî parastî dibûn, lê di navxwe ya welat de, pêşiya xelkê nedihate girtin ku serxwebûnê ranegehînin û cuda nebin, û sînorê welatan tûşî guherînkariyan nekin, lê ew yek cîbicî nebû, û Kurd ew şansê xwe jî ji dest da.

Di sala 1960`î de NY biryar da ku dibe welatên kolonîzekirî azadiya xwe bi dest bînin, û nabe tu welatek jî ji niha şûnda bê kolonîzekirin, Kurdistan welatekî dagîrkirî û kolonbîzekirî ye, lê di biyavê nasandina Kurdistanê wekî welatek kolonî kêmtir hewl hatiye dan, lewra mixabin Kurd nekariye heya niha jî bi komelgeha navneteweyî biselmîne ku Kurdistana dabeşkirî û gelê Kurd xiraptir ji welatên kolonîzekirî têne birêvebirin.

Di serdema şerê cîhanê ê duyem û şerê sar de, mixabin Kurd tu şanseke wisa tunebû, Komara Kurdistan jî, ku di dawiya şerê duyem ê cîhanî de, pêk hat, li Rojhilata Kurdistanê, şanseke wisa nebû para wê ku payeyên vê serxwebûnê qahîmtir bike. Di serdema şerê sar de jî Kurd li ber hevkêşeyên pêwendiyên navneteweyî şanseke wisa nebû, lewra rêkxirawên Kurdî, bi giştî daxwaza çareseriya pirsa Kurd di navxwe ya welatên zal bi ser Kurdistanê de dikirin, herçend ku sîmpatiya Kurd wê demê ber bi Rûsiyeya komonîstî bû, û jêve bûn ku têza Lênîn û Rûsiyeya sosyalîstî ji bo rizgariya gelan stratejiyek e (ji bilî hinek rêberên wekî Qasimlo nebe ku zû ji bo wan derket ku dibe riya xwe ji vê riyê cuda bike) lê eva armanceke taktîkî ya Rûsiyê bû, ew bi vî karê xwe tenê rewayî dibexşîne serhildana welatên belengaz, ne eva ku piştevaniya ji neteweperwerên zulmlêkirî bihê kirin, bo wan tenê armanc zeliqandimna hemû neteweyan bi federasiyona sosyalîstî ve bû.

Piştî serhildana xelkê Kurd di Başûra Kurdistanê di sala 1991`an de, di vê para Kurdistanê de, heya radeyeke baş Kurd kariye ku bi awayê serbixweyiyeke ranegehandî xwe bi rê ve bibe, yanî Kurd di biyavê xwebirêveberiya navxweyî de, bû xwediyê mafê xwe, lê di biyavê çarenûsê ya derekî ye, ku bikare bo xwe li ser pêgeha navneteweyî ya xwe biryar bide, ew yek bi dest nexistiye. Lewra referandomek ku îsal biryar e li Başûr bi rê ve here, li ser vê ye ku gelê Kurd xwazyar e li ser pêgeha navneteweyî ya xwe biryarder be, yan na, belkû dixwaze bi şirîkatiya digel dijminê xwe di Bexdayê vî karî bike,  û bo pêgeha Îraqê tekoşîn kiriye.




Li gora wan mafên urfî ên navneteweyî ku pêştir îşare pê hate kirin, Kurd di Başûr de derfeta vê yekê heye ku serxwebûnê ragehîne. Li ber vê ku Kurd hemû demekê ji aliyê karbidestên şovenî ên Bexdayê ve, gef li ser wan e. Karbidestên Bexdayê di hemû derfetekê de, bo binpêkirina mafên gelê Kurd mifahê jê werdigirn, û gef in li ser jiyan, mafê mirov, aboriya Herêma Kurdistanê.
Bo mînak birîna budceya hêza pêşmerge ku beşek e ji hêza bergiriya Îraqê, birîna mûçeyê xelkê Kurdistanê, gefa çekdarî ya Hêza Dîcle, şer û pevçûnên Xaneqîn û Kelar û …hwd, û gefên karbidestên Îraqê wekî Malikî û …hwd.

Kurd girûpeke cuda ya kulturî ye ji Ereban, û digel wan yek netewe nîne. Lewra çê dibe, ku wekî girûp hisab li ser bê kirin. Di biyavê mafê çarenûsa navxweyî de, hemû demekê gef li ser e, û dewleta navendî amade nine mafê qederê ê navxweyî bo gellek ji navçeyên Kurdistanê ku wekî navçeyên kêşe li ser didin nasandin, bi fermî nas nakin, û li ser dewerên din jî, hemû demekê gef hebûye.

Hikûmeta navendî ya Bexdayê, serbixwe ji vê ku kî hukim kiriye, hemû demekê bi awayekî cidî gef bûye li ser Kurd û dîrokekî pirr ji xwîn û kuştin û birîn di navebra Kurd û Ereb de ye. Ji aliyekî din ve, Kurd bi sedema şer li dijî terorîstan û DAÎŞê û afirandina sedan destanên mêrxasiyê, sîmpatiya civaka navneteweyî digel de ye, û serxwebûna Kurdistanê dibe sedema seqamgîriya navçeyê, û ew serxwebûn gef nine li ser maf û azadiya tu netewe û girûpeke din, û aştiya Îraqê naxe metersiyê de. Lewra rast bi van hêcetan ku Bengiladêş ji Pakistanê cuda bû, Kurd jî dikare di Başûr de bibe xwediyê serxwebûnê û mafê biryardana li ser qedera xwe hebeHekî di Kurdistana Başûr de serxwebûnê bi dest bîne, her rast bi vê sedemê ve ku di warê çewsandin, û binpêkirina mafê mirovan û mafê çarenûsa xwe de, li ser Başûr hate baskirin, beşên din ên Kurdistanê jî dikarin ku daxwaza serxwebûnê bikin. Lê em jî dikarin wekî girava Olandê, ku çawa daxwaz kir bikeve ser Swîdê, parên din jî, dikarin daxwaz bikin, ku bikevin ser Başûra Kurdistana serbixwe (Îrêdêntîzm), û bi vî awayî Kurdistana yekparçe bê avakirin, (eva nahê vê wateyê ku Başûra welat wekî rêber û biryarder li ser çarenûsa hemû Kurd, bihê lêkdan, lê li ber vê ku ew hemû pêngavekê li pêş in, li warê bidestxistina mafê çarenûsê de, lewra ew yek ji aliyê min ve tê ber bas, û ew yek tişteke realîstane ye, û hêvî dikim ku kes bi xirapî lêk nede).

Herçend ku ew armanc demeke zêde dixwaze, lê Rojavaya Kurdistanê ji niha ve ew derfet di ber destan heye. Bila em hemû bo yekparçeyiya Kurdistanê, bi kiryar hewl bidin. Ez hêvîdar im ku rêber û partiyên siyasî û xelkê Rojava bi giştî vê rêçareyê bo komkirina yekîtiya xaka parvekirî a Kurdistanê ji bîr nekin.

***Jêder:***
***-http:çç munin.uit.noçbitstreamç handleç10037ç8406çthesis. pdfÇsequence=2&isAllowed=y***
***-https:ççsnl.noçkolonialisme***
***-https:ççno.wikipedia.orgçwikiçlr-redentisme***

Rojavaya Kurdistanê ji niha ve ew derfet di ber destan heye. Bila em hemû bo yekparçeyiya Kurdistanê, bi kiryar hewl bidin.

# Nerîna Lîderan



**Îbadî**: "Serkevtina hêzên me, bi sedema hevahengiya digel hêza pêşmerge bûye".



**Eliksander Dûgîn:** "Kes nikare pêşiya avabûna dewleta Kurdistanê bigre".



**Yildirim**: "Amerîkayê gote me, ku di şerê Reqeyê de, em pişta xwe bi HSD`ê qahîm dikin".



**Nefîs Zekeriya**: "Nabe Efxanistan bi sedema lawaziya xwe, sexera Pakistanê bibe".

## Ehmed Muntezirî: Rûhanî! Rêz ji xelkê Îranê bigre



**Ehmed Muntezirî kurê Husên`Eliyê Muntezirî, danîna Mistefa Pûrmihemedî di kabîneya dewletê de wekî bêhurmetiya bi xelkê Îranê bi nav kir.**

Di gotûbêjekê de digel kempeyna navneteweyî ya mafê mirovan di Îranê de, Muntezirî got: Rûhanî dibe ku rêz ji bo xelkê Îranê danê, û danîna Wezîrê dozgeriyê ê kabîneya berê, bêhurmetiya bi xelkê ye.

Mistefa Pûr Mihemedî endamê desteya 4 kesî ya naskirî bi "Heyeta Merg" û nûnerê wê demê ê Wezareta Îtila`atê bû, ku çarenûsa çendîn hezar girtiyên siyasî di sala 1988`an de diyarî dikir, û cinayetên wê salê ser navê xwe tomar kirin.

Navbirî di bersiva xweşxizmetiyên bo rejîmê û encamdayîna dehan cinaytên li dijî azadîxwazên Îranê, di salên di navbera 1384`an heya 1387`an, Wezîrê Dozgeriyê yê kabîneya Hesen Rûhanî bû.

Hesen Rûhanî di demekê de dixwaze ku Pûrmihemedî bike yek ji endamên kabîneya xwe ku di dema piropagendeya xwe de bona vê ku bibe serkomar, ragehandibû: Xelk kesên wisa naxwazin ku 38 salan tenê biryara îdam û girtinê dane.

Rûhanî di demekê de ew axavtin dikirin, ku li gora amarên tomarkirî di navenda amara Ajansa Kurdpayê, di çar salên borî de, û tenê di Kurdistanê de, 1290 mînakên binpêkirina mafê mirovan hatine tomarkirin.

## Amerîka dixwaze "Binyata Elewî" hiloşîne




**Parêzerekî "Binyata Elewî" di Amerîkayê de, bi endamên heyeta dadperwer (munsife) a dadgehekê di wî welatî de got: "Amerîka dixwaze dest bi ser vê avahiya bilind ya ser bi Binyata Elewî de bigre".**

Li gora nûçegihaniyan, Amerîka dibêje ku vê avahiya ser bi "Binyata Elewî" tehrîmên aborî ên Amerîayê dewr lêdane, lê ew binyat vê yekê ret dike. Amerîka dixwaze ku vê avahiyê bifiroşe, û dahata wê jî, bide malbatên wan kesên ku di pirsa dosiyeya goriyên terorê de, dawaza zêdetir ji 5 milyard Dolarî ji Îranê kirine. Amerîka hewl dide ku çendîn avahiyên din jî di hinek ji eyaletên Amerîkayê, ji destê Binyata Elewî derxîne, ew binyat piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê hate avakirin, û buhayê wê di sala 1989-an de, 83 milyon Dolar bûye.

## 1800 ruhanî bi armanca mêjîşûştina mesebî, bo Kirmaşanê hatin şandin



**Digel berfirehbûna pêla nasnamexwaziya ciwanên Kirmaşanî û formgirtina hereketên xelkî ji bo bidestveanîna mafê neteweyî ê Kurdan, di vê parêzgehê de, û zêdebûna rojbirojê ya hatina nivşa nû bo nava partiyên Kurdî û dijberî rejîmê, hikûmeta Îranê dest kiriye bi kiryarên xapînok û pirr ji nakokî di Kirmaşanê de.**

Li ser bingeha nûçeyên ku belav bûne, Saziya Piropagendeya Îslamî a Kirmaşanê, bas ji şandina 1 hezar û 800 piropagendekarên mesebî di herêmên curbicur ên Kirmaşanê de kiriye. Mocteba Beyat di gotûbêja bi nûçegihaniya Mêhr re, di derbarê hejmara piropagendekarên şandî bo herêmên curbicur ên Kirm,aşanê, got: Bi şopandina micid û berdewam ku berî meha Remezanê bû, digel teblîxata Qumê derheq hewcehiyên parêzgehê, me karî em 1800 piropagendekaran amade bikin.

Kirmaşanê wekî yek ji bajarên herî pirr heşîmet ên Kurdistanê zaravayên curbicur û mesebên curbicur tê de hene, û armanca bernameyên pirr ji nakokî ên hikûmeta Îranê bûye da ku bikarin I vê riyê ve tevera netewyeî ya Kurdan ji rê derxînin. Şandina piropagendekarên mesebî bo herêmên curbicur ên Kirmaşanê ku xwediyê nifûseke berçav ji Kurdên Yarsan e, armancdar e. Kurdên Yarsan rewûa wan ya malî nebaş e, û hikûmet dixwaze bi girêdayîkiirna wan bi xwe û mesebê xwe, pêşiya meşên wan ên nerazîbûnê û tevlîbûna wan bi tevgera neteweyî demokratîk a Kurdistanê bigre.

## Çima baykota hilbijartinê ya şêvrên gund û bajaran biryareke rast û di cihê xwe de bû?



Elborz Ro`înten




Berî vê ku ez herim ser vê behsê ez dixwazim ku vê çendê bêjim ku di Komara Îslamî de, eva kes yan yasa nine ku axavtina yekem dike, belkû eva taqma deshilatdar e ku hemû biryarekê dikare derbike, û kes nikare pêşiyê bigre, bi taybetî hekî ev mijara pêwendiya wê bi Kurd û maf û daxwazî û derfeta gihîştina bi mafên xwe hebe.

Bawer nakim ku kes hebe ku digel vê boçûna serê dijatiyê bike, hekî dilê wî bo mafên Kurd lêde.

Ku wisa bû, emê Kurd dikarin bi bê yek û du, dijberiyê bikin digel hemû qewareyên Komara Îslamî, jiber ku heta hekî di yasayan de bi yasaya bingehîn ve jî, hekî bi qasî serê derziyê jî îşare pê hatibe kirin, tiştek din e, jiber ku ew taqma deshilatdar e ku ne tenê xwe li serveyî yasayê dizane, belkû xwe bi nûnerê Xwedê li ser erdê dizane. Heya vî cihî ku ew taqma hebe, li dijî me tev digere, û hukmê dagîrkariyê heye. Ku em dibînin li dijî me tev digere, em jî dibe li dijî wê bisekinin.

Di rewşeke wisa de, ez dibînim ku rexne tê girtin ku baykota şêvrên gund û bajaran û bi taybetî ew bajarên ku Kurd û Azerî yan Kurd û Fars tê de ne, ne dirust e, lê ew rexne ew qas bê cî ye, ku peyrewiyê ji tu bingehekê nake, lê bona rohnbûna zêdetir ezê bersiv bidim.

Baykota hilbijartina gund û bajaran, şaş nebû, jiber ku ferq û cadahîdanîn bi awayekî sîstematîk li dijî gelê Kurd tê kirin, û şêvran tu deshilateke wan ya wisa nine, ku bikarin vê ferq û cudahîdanînê nehêlin. Piştre jî ew Kurdên ku bo kandîdbûnê dibe ji fîltera Îtila`atê re derbaz bibin, nikarin ku van kêşeyên baskirî çareser bikin.

Mezintirîn deshilata şêvra bajar, hilbijartina şaredar e, lê li gora yasaya gund û bajaran, piştî vê ku şaredar piştî şert û mercê diyarîkirî, ji aliyê şêvrê ve tê hilbijartin, dibe ku Wezîrê Navxwe yan jî parêzgar pesend bike, piştre bibe şaredar.

Heta hekî kêşeyek di navbera wezîr û şora, yan parêzgar û şora de pêk hat, eva heyeteke din heye ku biryar dide, wate şora ew deshilat jî tune ye.
Ku wisa bû hêvîdarbûna bi vê ku şora di berjewendiya Kurd de, li dijî siyaseta ferq û cudahîdanînê bisekine, yan biryarên wê di berjewedniya Kurd de be, gellekî şaş e, û dibe sedema jirêderxistina daxwazî û mafên Kurdan, bi taybetî hekî ew hêvî ji aliyê kesayetî yan hêzeke şoreşger ve çê be.
Mijareke din ew e ku dibêjin baykot nehê kirin, û hilbijartin di van bajaran de, bi taybetî di Urmiyê de belgeyek e, bo Kurdistanîbûna Urmiyê.

Di rastî de ew yek şaşe, û bi vî rengî em Kurdistanîbûna van bajaran dixin nava leyîzeke siyasî de, ku birêveber û deshilatdarê wê komara Îslamiya Îranê ye, gelo dibe em deshilatdariya vê sîstemê qebûl bikin, bê guman na, jiber ku hekî wisa be, eva em pirsê dixin ser Kurdistanîbûn yan nebûna vî bajarî.

Cuda ji hemû van hokaran, em wisa danên ku şora di nava hilbijartineke demokratîk û bê kêşe de têne birêvebirin, dîsan jî li ber vê ku mafên me yên neteweyî û daxwaziyên me di çarçoveya sîstema Komara Îslamî de nahê cîbicîkirin, baykot riya herî baş e, jiber ku daxwaziya Kurd bi şorayên bajarekî nahê cîbicîkirin, di demekê de hemû deshilatên lokalî ji aliyê vê sîstemê ve têne diyarîkirin, gelo şorayê bê deshilat kurd be, yan na, çi dibe.

Biçûkkirina daxwaziya Kurd di rewşeke wisa de, bi hilbijartina şora, wateyeke wê nine, û ew jî ji rê derxistina hêz û demê ye. Lewra jî li ser bingeha amaran û encamên derev yên Komara Îslamî, rexnekirina biryareke dirust û exlaqî ez bi baş û dirust nizanim, heya gellek caran jî ew rexne hilkeliyê kutan û dijberiya hevdu ye, hekî wisa nebe, çima cardin piştî mehekî, em dîsan li dijî Komara Îslamî dibin hevra, û em dîsan hawara xwe bo çeka xwe dibin li dijî vê sîstemê, û ne şora, û ne jî nûnerê meclisê, û ne jî reformxwaz bi hawara me de nahên, û heya dijatiya me jî dikin.

---

**Doma R: 2**

“ El-re`iy” a Koweytê, belav kir ku Amerîkayê rejîma Îranê agehdar kiriye, ku hekî leşkerên Amerîkayî di Îraq û Sûriyê de zirarê bibînin, wê Amerîka êrîşî ser binkeyên leşkerî ên Îranê di navxwe ya welat de bike.

Her di vê derheqê de, jeneral “Martin Dempsey” serokê pêşin ê navenda hevbeş ya Arteşa Amerîkayê di civîneke kongireya Amerîkayê de ragehandibû ku rejîma Îranê berpirs e di hemberî kuştina hezaran leşkerên Amerîkayî.
Wezîrê Parastinê ê Amerîkayê jî, roja 6`ê Cozerdanê di gotûbêjekê de, digel kanala televîzyon ya CBS de ragehandibû, şûnpiyê rejîma Îranê, û Spaha Pasdaran a vê rejîmê, di her cihekî de ku alozî bihê dîtin heye, her ji Lubnanê ve bigre heya digihîje Yemenê, herwisa li Sûriye û Îraq û Behrîn û hemû cihekî.

Navbirî herwisa gotibû ku Komara Îslamî heya dest ji terorkirina kesayetiyên bîhanî jî naparêze, û di vê rastayê de dixwast ku balyozê Erebistanê di Waşingtonê de jî bikuje. Di Rezbera sala 1390`î de, hêzên Amerîkayî karîn ku Mensûr Erbab Seyar ku di koka xwe de Îranî ye destbiser bikin, ku dixwast Adil El-cobeyr balyozê wê demê yê Erebistanê di Amerîkayê de teror bike, piştre eşkere bû ku ew terorîst Îranî ye, û ji riya hêza Quds a Spaha Pasdaran ve hatibû handan û tûjkirin, da ku vê operasiyonê encam bide.



Koma van bûyeran di demekê de rû didin, ku li gora dawî nûçe û zanyariyan, Komara Îslamî a Îranê berdewam e li ser ceribandina mûşekên Balistîk, ku hêz û şiyana hilgirtina kumê navikî hene, û ew yek jî berevajiyê biryarnameya Konseya Ewlekariyê ya NY ye, û herwisa di heyama çend hefteyên borî de komke belgeyên nû derheq destêwerdanên Komara Îslamî li nav karûbarên navxweyî ên welatên herêmê û pêkanîna tevdanîkariyan di Rojhilata Navîn de belav bûn, ku diselimînin rejîma Tehranê bi pirrçekirina girûpên tundrew ên wekî Taliban, Husiyan, Elewiyan, û Hizbullahê hewla neseqamgîrkirina nevçeyê dide.

## Reporterê NY: Di Yemenê de jî Behayî wekî Îranê têne azardan



**Ehmed Şehîd reporterê NY di biyavê azadiya ol û baweriyan, tevî rexnekirina hikûmeta Yemenê derheq azardana Behayiyan, ew kiryara wan şibihande kiryara deshilatdaên rejîma Îranê.**

Li gora malpera NY, Ehmed Şehîd piştrast kiriye ku tundkirina kiryara berdewam ya zexta li ser civaka Behayî di "Sen`a"yê de, wekî rewşa nebaş ya Behayiyan di Îranê de ye.

Ehmed Şehîd di dirêjiyê de bas ji vexwandina aliyê kêm30 Behayiyan di Yemenê de bo dadgehê ji aliyê serdozgeriya Yemenê kiriye, û ragehandiye ku aliyê kêm 25 Behyaî hatine girtin, û ew bona înkarkirina olê xwe xistine bin zextê de. Di vê derheqê de, Civaka Navneteweyî a Behayiyetê dibêje, Behayiyên ku di van dawiyane de, di Yemenê de hatine girtin, piraniya wan, ji kesên lêhatî ên civaka Behayî bûne, û bo îdareya karûbarê civaka Behayî alîkarî dikirin.

Li gora vê raporê hêzên kincşexsî di van dawiyane de, çar Behayiyên din, wekî Welîd Eyaş rêberê naskirî ê yek ji qebîleyên Yemenê destbiser kirin. Tê gotin ku berpirsyar amade nebûne rê bidin ku xizmetên tendurustiyê bigihîje heft Behyayiyên di girtîgehê de.

Ehmed Şehîd di vê derheqê de dibêje: Wisa xûya dike ku armanc ji vê pêla nû ya girtinan, tirsandin û zexta li ser Behayiyên Yemenê be, bo înkarkirina olê xwe, lê nabe tu kesek bi taybetî kesên ser bi kêmaniyên mesebî, bi sedema hebûna oleke cuda bikeve ber êrîşê.

Ehmed Şehîd di sala 2016`an de, wekî rêporterê taybet ê azadiya ol û baweriyan a NY hate danîn. Ew berî vê, reporterê taybet ê karûbarê mafê mirovan a Îranê bû.

## "Human rights watch"ê Heşda şe`ibî rexne kir



**Saziya "Human rights watch" cardin hejmarek wêne û girteyên vîdyoyî ên îşkencekirina hejmarek ji hevwelatiyên Sunî meseb ên Mûsilê belav kir.**

Ew rêkxiraw bas ji vê dike ku wêne û girteyên vîdyoyî taybet in bi wan binpêkariyên çekdarên Heşda şe`ibî û hejmarek leşkerên ser bi hêzên "bersivdana bilez" a ser bi Wezareta Navxwe a Îraqê ku bêrehmane, û bi pêkenîn ve, hejmarek hevwelatiyên medenî îşkence dikin.

Sara Liya Wîtson, birêvebera ofîsa Rojhilata Navîn û bakûra Afrîqa ya saziya "Human rights watch" derheq bi vê pirsê gotarek pêşkêş kir, û tê de bas ji wêne û girteyên vîdyoyî dike, ku dise-limînin ew hêzên Wezareta Navxwe a Îraqê, kiryarên tundûtîj û reftarên nemirovî di hemberî wan kes û malbatan kirine, ku tenê li ber vê ku gumana DAÎŞbûnê ser wan hebûye, ew girtine, û piştre bidar vekirine. Bo yekem car pirsa îşkencekirin û kuştina hevwelatiyên Sunî ên Îraqê bi taybetî li Mûsilê ji aliyê Kovara "Spiegel" a Almanî ve hate eşkerekirin, û di raporekê de, hejmarek wêne belav kirin ku tê de hêzên Heşda şe`ibî û spaha Îraqê, binpêkariyan li dijî hejmarek hevwelatiyên Sunîmeseb ên Mûsilê dikin.

Pêştir jî di 28`ê meha Gulana sala borî de, 17 hevwelatiyên Îraqî ên Sunî di navçeya Kerame ya derdora Fellûcê ji aliyê Heşda Şe`ibî ve bi awayekî nemirovane hatin kuştin û hevdem sercem mizgewtên derdora Fellûcê jî ji aliyê Heşda Şe`ibî ve hatin têkdan. Heşda Şe`ibî girûpeke çekdar ya şî`e meseb in, ku ji aliyê rejîma Îranê ve bi armanca qazanca siyasî û bo parastina vê rejîmê hatiye sazkirin. Qasim Silêmanî terorîstekî navdar ê Îranê ye ku roleke mezin di organîzekirina çekdarên şerfiroş ên Heşda Şe`ibî û terorîstên din ên navçeyê bi taybetî li Îraq û Sûriyê de heye.

## Hindî ku tê, hejarî hejînertir dibe

**Serbarê qewlên berdewam ên gire berpirsên rejîmê derhe binbirkirina hejariyê, ew diyardeya civakî-aborî hindî ku tê, hejînertir dibe, û zêdetir geşe dike.**

Di çend rojên borî de, girteyeke vîdyoyî di nava torên civakî de, belav bûye, ku ew qasê bêçaretiya xelkê Îranê di warê aborî de nîşan dide.

Li gora vê vîdyoyê malbateke hejar ya paytexta Îranê, bi sedema destkurtiya xwe neçar dibin, zarokê xwe ê çar salî bi nirxeke kêm bifiroşin.

Li gora lêdwanên Fatime Danişwer çalaka civakî ku bixwe bidûreçûn kiriye bo vê pirsa dilêş, ew malbata hejar amade bûn ku di hemberî wergirtina 500 hezar Tûmenî de, keça xwe ya çar salî bifiroşne kesekî ku tûşî madeyên sirker bûye.

Heya ew kesê ku di gel Fatimê qise dike, bi heyrîmanê ve jê dipirse: Em di çi welatekî de dijîn, dema ku nirxa "kutkê se" 2 milyûn Tûmen e, lê nirxa "zarokekî 4 salî" tenê 500 hezar Tûmen e.

Pêştir jî terajidiyayên bi vî awayaî di Îranê de hatine dîtin, heyamkê berî niha jî rojnameya Arman Êmroz di raporekê de belav kiribû, ku jinek di nexweşxaneya bajarê Erakê de, bi zigekê sê zarok bûne, ku bavê van zarokan bi sedema destkurtî û nebûna pereyê nexweşxanê, biryara firotina zarokên xwe daye.

Amarên fermî serbarê hemû sansor û deskariyan bas ji vê dikin ku hejarî di Îranê, gihîştiye ew qasê xwe, û berpirsên rejîmê jî, vê rastiyê venaşêrin.

Her di vê derheqê de, heyamekê berî niha jî malpera ISNA a Ko-mara Îslamî hejmarek wêneyên hejîner li ser rewşa nebaş a jiyanê, di navçeyên Erebnişîn ên Ehwazê, ku nîşanderê bêçaretiya xelkê ye belav kirin.



## ZIMANÊ KURDÎ DI EDEBIYATA KURDÎ DE

Beşa 2



Besam Mistefa

Nivîskar û têkoşerê Kurd Dr. Nûredîn Zaza carekê di zindaneke Sûriyê de gotibû: "Em ê zindanê bikin dibistana zimanê kurdî." Zaza herwiha girîngiyeke mezin dida zimanê Kurdî û wiha digot: "Eger tu bixwazî xwe bi xelkê bidî naskirin, zimanê xwe bixwîne û bide xwendin. Û eger hûn bixwazin ji hev tarûmar nebin, dîsa zimanê xwe bixwînin û bidin xwendin."

Kesên mijûlî ziman dibin pir kêm in"

Xebatkar û zimanzanê mezin Osman Sebrî jî ziman wek koka netewebûnê didît. Osman Sebrî xwe pasevanê zimanê kurdî dibîne û bi tundî kesên ku xwe di ser zimanê kurdî re dibînin û bi pozbilindî zimanên biyanî diparêzin û bi zimanê kurdî naxwînin û naxwazin bixwînin û xwe wek zanayên doza kurdî dibînin rexne dike û dibêje: "Ziman zimanê me hemûyan e. Ne yê yekî yan yê diduyan e, gava ku em ji bo zimanê xwe bixebitin em qenciyê bi xwe dikin. Lê heyf yê ku heta niha bi ziman mijûl dibin gelekî kêm in. Em miletekî bê ziman in. Aniha pir xortên me hene xwende ne, bi erebî jî xweş dizanin, dibêjin: Em dê ji miletê xwe re xizmetê bikin! Lê mixabin hînî zimanê xwe nabin, ez ê çawa ji wan bawer bikim!"

Helbestvanê Kurd Mele Nûriyê Hesarî jî cihekî herî xuya û balkêş dide zimanê kurdî û wî wek jêder û dayika piraniya zimanên cîhanê dibîne û li jêr navê (Li Ser Zimanê Kurd) wiha dibêje:

"Zimanê Kurd ti nîşanek ji dûndê bav û kala ye
Gelek dem çûn hemû dimrin belê her tu li pey maye
Tû şêrîn î gelek rindî wekî mûmê li ber mala ye
Li ser koh û di nêv deşta li Kurdistanê ala ye
Tu pey mayê gelê Kurd î devê Gurgîn û Zala ye

Biha nîne ji bona te bi zîv û gewher û zêran
Tu nahêlî nîşanê Kurd ji cîhanê bibî wêran
Divê îro bixwînim te ji bona te bibim dêran
Neyara kiriye cenga te bi şûr û xencer û kêran
Ti pêçabûn di nêv cerga şepal û zariwê şêran

Zimanê min pirî kevn e di nêv zaran wekî bûk e
Bi rist û zêr û ayîne bi her tişta wekî sûk e
Dev û lêva dikî şêrîn wekî berfa xweş û pûk e
Heçî zarê li cîhanê li ser wan ew dibî tûk e
Bi hîvaztin bi hûnandin sivik tê her wekî çûk e

Di qadê de pirî kûr e bi gêr û rêzik û tax e
Zimanek mak û tenha ye ne tirh û katik û şax e
Ji wê qaça zimanê Hind ji Wîdasî wekî max e
Gelê Arî bi wî peyvîn di cîhanê gelek çax e
Kesê rista ji wî çêkî were cîhan ji wî raxe
Zimanxwêna teva gotin heçî hîmê te pir kûr e
Deravê kû ti çêbûye di rabûrê gelek dûr e
Ti zarê Nûh û Zerdeşt î li te ger xweş bibim hûr e
Bi wî hate nivîsandin bi tîp û rûpelê nûr e
Pelokê Zend û Avesta bi cenga xencer û şûr e."

"Li vî welatî her tişt bi kurdî reng dide"

Helbestvan û gotarvan Vejîna Kurd jî hest û hêviyên xwe li ser zimanê kurdî wiha tîne zimên: "Ev ziman wek pêlên hênkahiyê xwe berdide nava hinavên min, û tîpên vî zimanî dikarin deşt û çiyayên hêviyên min bi ber bikin. Li vî welatî; her tiştek bi kurdî reng dide. Solîn bi kurdî dipişkivin, mêrg û çîmen bi kurdî şîn dibin. Buhar bi kurdî geş dibe û payîz bi kurdî serê xwe dişo. Li ber dergûşan, dayîk bi kurdî dilorînin û zarok bi kurdî dikenin û digrîn. Ji bilî zimanê kurdî, tu ziman nikare tabloyên me bi rengên xweşik wêne bike, germahiya hestên herikî binoşe û wergerîne nivîsandinê. Belê, tenê mirovên ku ji ava kaniya zimanê Kurdî vexwarine û pê sermest dibin dikarin têbighên û binirxînin ku Kurdî deryayeke kûr, fireh û bê dawî ye."

**Dawî**

## JAN DOST: MIN DÎROKA BAJARÊ XWE NIVÎSAND

**Romana bi navê Kobanî ya nivîskarê navdar Jan Dost, li Tirkiyê hate belavkirin û Jan Dost ji bo xwendevanên pirtûka Kobanî, îmze avêtin ser pirtûkan.**

Jan Dost romana xwe ya Kobanî bi kurmanciya kurdî û bi zimanê erebî nivîsandiye û daye ber çapê. Romana Kobanî ji weşanxaneya Dara derket.

Jan Dost ji Rûdawê re diyar kir: "Min romana xwe pêşî bi zimanê kurdî nivîsand, piştre jî bi zimanê erebî. Ev roman, romana bajarê min e ku 17 sal in min ew nedîtiye. Ew şerê ku li wir qewimî, wisa kir ku bîranînên min weke kaniyê biteqin û dîmenên wî werin ber çavên min. Min him dîroka bajarê xwe, him şerê ku têde qewimî, him perîşaniyeta milet û him jî bûyerên din nivîsandin."

Helbestvan, nivîskar û wergêr Jan Dost di sala 1965an de li bajarê Kobanî hatiye dinyayê.

Heta lîseyê li Kobaniyê xwendiye. Ji sala 1985 an heta 1988an li Zanîngeha Helebê fakulteya Zanistê Beşa Biyolojiyê xwendiye.




Jan Dost di 10 saliya xwe de dest bi nivîsandina helbestên erebî kiriye, piştî 15 saliya xwe vegeriyaye ser zimanê kurdî.

Çîroka wî ya yekem Xewna Şewitî di sala 1993 an de di pêşbirka kurteçîroka kurdî de li Sûriyê xelata yekem standiye. Herwiha ev çîrok li Tirkiyê jî weke şano hatiye lîstin. Ji bilî vê çîrokê, Jan Dost çend çîrokên din jî nivîsandine, weke mînak Mistek Ax ku di sala 2007an de li Almanyayê bûye kurtefîlm.

Ji gelek berhemên wî yên navdar çend romanên wî ev in: Mijabad, 3 gav û 3 darek, Mîrname, Martînê Bextewer.

Jan Dost çendîn pirtûkên kurdî jî wergerandine erebî. Weke mînak Mem û Zîna Ehmedê Xanî.

## Zimanê Kurdî

A. BERHEVDA – COMPARATIVE

Wek ku ji navê wê yê rêzimanê jî xuya dibe, tiştan dide ber hev û dîyar dike ku kîjan ji kîjanê bêtir ... e. Peyvên ku di vê rewşê de tên bikaranîn ev in: -tir, hîn, hêj, bêtir

baştir, siviktir, kintir; hîn xweşik, hîn zû, bêtir bi baldarî, bêtir bi camerî

Ev rewşa rêzimanê pir dişibe ya Îngilîzî. Ew jî wek me hem paşpirtik (-er) û hem jî peyva serbixwe (more) bi kar tînin.

B. RASERÎ – SUPERLATIVE

Ev jî dîsa ji navê xwe xuya ye ku ya raser dîyar dike. Anku ji giştan/hemûyan yek raser e. Di vê rewşê de peyvên wek herî û –tirîn tên bi kar anîn.

herî baş, herî sivik, herî kin; xweşiktirîn, zûtirîn, baldartirîn

Dîsa wek Îngilizî yek peyva serbixwe (herî - most) û yek jî paşpirtik (-tirîn / -est) e. Lewra ji bo mînakan hema ez ê yekser ji pirtûka xwe ya Dersên Kurdî bi ravekirina Îngilîzî du rûpelan li vir bidim.

Berî wê ez ê li ser mînakên te jî yek-du tiştan bibêjim.

Baş
Hîn baş
Baştir
Hîn baştir
Herî baştir
Herî baştirin

'Herî baştirîn' nabe, ji ber ku yek ji wan têrê dike û dema ku di vê rewşê de du bên bikaranîn, wate serobin dibe û rêzimanê jî binpê dike. Li lew re, divê em bibêjin, herî baş an jî baştirîn.

'Herî baştir' jî nabe, ji ber ku heke tu bibêjî herî, êdî ji xwe dereca wê ji '-tir' xurttir e. Îcar ku tu '-tir' lê zêde bikî, tu dereca wê kêm dikî, tevlihevî çêdibe. Divê yan 'Herî baş' yan jî 'baştir' bê tercîhkirin. Ew jî li gora rewşa ku tu dixwazî îfade bikî. Yek ji yekê baştir dibe, lê dema ku yek ji giştan/hemîyan baştir be, ew dibe 'herî baş', wê gavê 'baştir' derbas kiriye, jê rasertir/bilindtir bûye.

'Hîn baştir' û 'baştir' gelek kes bi heman wateyê bi kar tînin, lê belê fonksîyona wan cîhê ne.
Em bêjin 3 xwendegehên me hene, em behsa başbûna wan dikin.

Xwendegeha jorîn baş e.
Ya jêrîn baştir e (hîn baş e).
Lê ya nuh hîn baştir e (ji wê jî baştir e).

Me kanîbû bi kurtî bigota, Ya nuh herî baş e.

Hêvî dikim ku bibe alîkar.

Baran RIZGAR




## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- Deh piye, du destiye, sê seriye, êk periye. (* gulik, çêl, bêrî)

- Deh dar û du ben, hemî bi fiil û fend, nêrçîrê dikin.
(* Deh darêt sûtê pêkdiînin û du ben)

- Bizna bi sih û du şaxa. (* 2 şaxên biznê û siha/sîber wê)

- Ne çandî li ser pişta ne zay, ne zay li ser pişta bê ruhî, bê ruh li ser pişta bê îmanî. (* hêstir/dewar, pir, av)

- rêzka daniya li serê xaniya, sê li sihê, du li tavê. (* nivêj)
Heyva remezanê

- 30 mêvan hatine gundê me, her mirovekî 30 bo çun.
- 30 siyarên li dinê, her bajar 30 diçinê, her gund 30 diçinê, her malê 30 diçinê.
Demên salê

- Sê sênîkên savarê, du disar in, êk germ e.

- Sê bih in, sê zerde bih in, sê hinar in, sê jehremar in.- Çar bira ne bi qasî hev, derbas dibin li dû hev, yek germ e, yek sar e, di yekê de Adar e, di ya din de mijdar e.Rojî yên Remezanê

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (303)


## Rêûresma roja cîhanî ya zarokan di navenda 3 a Kurdistanê de bi rê ve çû



**Rêûresmeke bicoş a taybet bi roja cîhanî ya zarokan di navenda 3 a Kurdistanê de, bo zarokên vê navendê bi rê ve çû.**

Navenda 3 a Kurdistanê a PDKÎ roja 11`ê Cozerdanê hemberî 1`ê Hezîranê rêûresmeke taybet bi zarokên PDKÎ di navenda 3 de bi beşdariya çendîn çalakên ferhengî û rojnamevan û rêkxirawên çalak di biyavê karûbarê zarokan û herwisa rêkxirawa UNHCR`ê bi rê ve .

Di destpêka merasimê de, û piştî bixêrhatinkirina mêhvanan ji aliyê birêvebera merasimê ve, her yek ji rêkxirawên Hîway Rohilat û Kurdistan Foto, peyamên xwe pêşkêş kirin.

Piştre çendîn sirûd û stran û helbestên zarokane ji aliyê zarokên beşdar di merasimê de hatin xwendin, ku rewşeke taybet bexşîne merasimê.

Di beşeke din de, diyariyên roja zarokan bi ser hemû zarokên beşdar di merasimê de hatin parvekirin, û ew merasim bi govend û dîlana beşdarbûyiyan bi dawî hat.

## Rêûresma roja zarokan di yek ji binkeyên Deftera Siyasî a PDKÎ de bi rê ve çû



**Roja Zarokan di yek ji binkeyên Deftera Siyasî a PDKÎ de, bi beşdariya zarokên PDKÎ bi rê ve çû.**

Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, êvariya roja Pêncşemiyê 11`ê Cozerdanê, bi boneya roja cîhanî ya zarokan , navenda Nêrgizê rêûresmeke bicoş bi rê ve bir.

Destpêka rêûresmê bi xwendina sirûda neteweyî ya Ey Reqîb û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan dest pê kir.

Rêûresm ji çendîn beşên curbicur wekî pêşbaziyên zarokan, û xwendina helbest û stranan ji aliyê zarokên beşdar ve bi rê ve çû. Beşeke din ya vê rêûresmê govend û şahiya zarokên navenda Nêrgizê bû, ku bala beşdarên rêûresmê bo aliyê xwe rakêşa. Piştre hunermend Xulam Fatihî bi hevaletiya Şepol Rehîmî stranek pêşkêşî rêûresmê kir.

Piştre diyariyên navenda Nêrgizê bi ser zarokên Azadî de hatin parvekirin, û dawî

## Rejîma Îranê gorên bikom di Ehwazê de xira dike

**Saziya Lêborîna Navneteweyî û Saziya Dadperweriya bo Îranê, di daxuyaniyeke hevbeş de bas ji têkdana goreke bikom di Ehwazê de kirine ku termê 44 kesan têde hatiye veşartin.**

Li gora nûçegihaniyan, Saziya Lêborîna Navneteweyî û Dadperweriya bo Îranê ragehandine ku ew fîlm û wêneyên ku gihîştina saziya wan, nîşan didin ku rejîmê pirojeyek li derdora gorên bikom dest pê kiriye, û dixwazin wan gorên bikom têk bidin û li wir navendeke ticarî ava bikin.

Cîgirê beşa Rojhilata Navîn û Afrîqayê a Lêborîna Navneteweyî ragehandiye: “Bi têkdana gorên bikom di Ehwazê de, wisa dixûye ku rejîma Îranê dixwaze bi armanceke nepak, şûnwarên cinayetên xwe ên berê ji nav bibe, û malbatên qurbaniyên kuştara sala 1988`an ji mafên xwe di warê heqîqet, dadperwerî û cibrankirina xisaran bêpar bike. Ew yek êrîşa li ser edaletê ye ku dibe bê ragirtin”.
Şadî Sedr birêvebira Saziya Dadperwerî bo Îranê dibêje: “Di salên borî de, berpirsan, malbatên qurbaniyên îdamên sala 1988`an rastî gellek êş û azaran kirin. Wan îzin nedane malbatên wan ku ew bixwe li gora deb û resmên xwe miriyên xwe veşêrin, û niha jî dixwazin ku aramgeha qurbaniyan ji nav bibin, û şûnwarê wan jî nehêlin”.

Berpirsyarên rejîma Îranê dixwazin bi têkdana van gorên bikom belgeyên girîng ji nav bibin ku rojekê dikarin girîng bin bona rohn û zelalbûna hejmar û nasnameya wan kesên ku bi destê hikûmetê hatine kuştin”.

Gorên bikom ên Ehwazê li ser kerek erd li sê kîlometriya rohilata goristana Bihiştabadê de ye. Wisa dixûye ku ew gorên komî, termê dehan kesî tê de hatibin veşartin, ku wê demê pêwendiya girtiyên siyasî digel derveyî girtîgehê qut bibû, û piştî dewreyeke bêxeberiyê, ew girtî bi dizî ve dihatin îdamkirin.
Termê wan di di nava wan kanalan de dihatin veşartin ku ji bo îdamkiriyan hatibûn amadekirin. Piştre wan rûyê gorên bikom bi sîmanê dadipoşîn, da ku malbatên wan nekarin termê wan derxînin, û bo ciyekî din bibin.

